hejmar 43 Payîz 2008

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*

*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Civîna Payîza 2008an

*Civîna 43yan a* **Kurmancî** *ji 6 ta 12yê çileya pêşîn ya 2008an li Vesterosê, Swêd, li dar ket.*

*Beşdar, di vê civînê de li ser peyvên di qewlên Êzîdîyan û stranan de, peyvên rûsî di kurdî de, li ser peyvên xanî û fûtbolê û herweha peyvên di wergera Şerefnamê ya Mela Mehmûdê Bazîdî de xebitîn.*

*Ev hevalên han di civînê de beşdar bûn: Mustefa Aydogan (Mêrdîn), Elîşêr (Wan), Emîn Narozî (Batman), Selam Nûman (Qamişlo), Zinar Soran (Dêrik), Têmûrê Xelîl (Rewan), Reşo Zîlan (Agirî).*

*Encamên xebata vê civînê di vê hejmara Kurmancî de tên belav kirin.*

*Ji ber ku xebata li ser peyvên xanî di hejmara 41an a* **Kurmancî** *de hatin belavkirin, di vê hejmarê dê ew babet tune ye.*

**Lêborîn :**
Navê hevalê me kek Elîşêr (Wan) bi şaşî di nav beşdarên civîna me ya 41an de derneketiye. Em ji ber vê şaşiyê gelekî şermezar in. Ji hevalê xwe yê hêja doza lêborînê dikin û ji xwendevanan jî hêvî dikin ku vê kêmasiya me bidin bin lingan.

# Gotinên rûsî ku derbasî kurmancî bûne

**Amadekar: Têmûrê XELÎL**

*Femdarî ye, ku hemû miletên cihanê, xwesma yên cînarên hev, mecbûr dibin gotinan ji hev hildidin, wan gotinan gorî taybetmendîyên zimanê xwe "şimşat" dikin, ango, dikine nava qalibê zimanê xwe, wana bi kar tînin û bi wê yekê ve zimanê xwe dewlemend dikin.*

*Perçebûna Kurdistanê bû sebeb, ku zimanê kurdî zêde kete bin tesîra zimanên dewletên dagîrkar. Li welatên, ku zimanê dewletê fermî be û zimanê kurdî jî di wan de hema bêje qedexe be, pêşketina wî nikare zêde berbiçav be.*

*Emê di vê nivîsarê de her tenê behsa tesîra zimanê rûsî li ser kurdî bikin û destnîşan bikin, ka çi gotin û çawa ji rûsî ketine nava kurdî û bûne milkê zimanê me. Emê behsa wan gotinên rûsî-kurdî yên mînanîhev û hemfikir nekin, ku bingeha wan ew e, ku herdu ziman jî hindûewropî ne (wek: mîş-mişk, birat-bira, jêna-jin, brov-birû û h.w.d.). Emê behsa wan gotinan jî nekin, ku bi pêşketina civat û têknîkê ve girêdayî ketine nava zimanê me.*

*Dîroka pêwendîyên herdu miletên binecî yên hindûewropî, rûs û kurd, di hêla zimên de heta niha rind nehatîye lê nihêrandinê û lê kolanê. Rûs û Kurd di demên here kevnar de cînarên hev bûne. Lema jî gerekê zimanên wan herdem di nava danûsitendinê û jihevhildanê de bûyana. Ev pirsgirêk heta niha jî ne di kurdzanîyê de, ne jî di rûsîzanîyê de nehatîye azirû kirinê.*

*Wek tê zanîn angorî Peymana Turkmençayê (sala 1828an) devereke Serhedê dikeve nav sînorên Rûsyayê, wek Îdir, Aralix û Qulp. Di zimanê tirkî de ew herêma, ku wan deveran hildide nav xwe, bi navê Çala Surmeliyê (Sürmeli Çukuru) hatiye bi nav kirin. Wek em zanin, Qulp bi xwêya xwe ve navdar e û jê re niha bi tirkî dibêjin Tuzluca. Piştî ku ev war dikevin nav erdê Rusyayê, dibin beşeke Wîlayeta Rewanê (Êrîvanê). Piştî şerê 1877an vê carê ji Qaqizmanê bigire heta bajarê Qersê û Erdehanê erdekî gelek fireh dîsa dikeve destê Rûsan. Mirov dikare bêje ku ji Aralixê (başûr) bigire heta Erdehanê (bakûr), beşeke mezin a Serhedê dibe perçeyekî erdê Rûsyayê. Ew hêla Çala Surmeliyê dikeve nav îdara wilayeta Êrîvanê (Yêrêvanskaya Gûbernîya) û hêla Qersê jî wek rêveberiyeke serbixwe tê qebûl kirin û di zimanê rûsî de wek bi navê "Karskaya Oblast" (Herêma Qersê) hatiye bi nav kirin. Devara Surmeliyê bi qasî sed salî (di navbera salên 1828-1917an de) û devera Qersê jî bi qasî çil salî (di navbera salên 1877-1917an de) di nav erdê Rûsyayê de dimînin. Hemû ev erdê Serhedê heta şoreşa Oktobirê ya sala 1917an di bin hukumdariya Rusyayê de bû. Lê belê, piştî ku îdara nû hat, Lênîn tevaya van erdan li Osmanîyan vegerand.*

*Çawa ku gotinên rûsî ketibin kurdîya Serhedê, wisa jî ketine kurdîya zaravayê kurmancî ya Kurdistana Îranê, xwesma ya alîyê Ûrmîye û Kotolê. Wan salan sînor gelekî xurt nedihatine parastin û çûyîn-hatina di nav Kurdên bakur û rojhilatê de pir bû.*

*Femdarî ye, ku eger Kurd û beşeke Kurdistanê bi dehan salan di bin hukumê Rûsîyayê de mabin, bivê-nevê wê ji zimanê rûsî hinek gotin derbazî nav kurdî bibin. Xwesma gotinên wisa, ku di axaftina rojane de tune bûne. Em hindek ji wan gotinan li jêrê raberî we dikin.*

*Hewcedarîya bikaranîna gotinên rûsî û têrmînolojîya navneteweyî xwesma wê demê zêde bû. Ji dawîya salên 20î yên sedsala 20an şûnde li Ermenîstanê di dibistanên gundên Kurdan de dersên ziman û edebîyeta kurdî dest pê kirin û rojnameya "Riya Teze" dest bi weşanê kir. Hingê lazimaya wergerandina berhemên rûsî, çapkirina berhemên zanistî, xwesma yên li ser ziman, fonêtîk û rastnivîsandina kurdî peyda bûn. Ji wan salan şûnde zaneyan dest pê kirin hinek gotinên rûsî bikine kurdî, ku berê ne di edebîyeta klasîk de, ne di folklora kurdî de û ne jî di axaftina gel ya rojane de hebûn. Ango, çend gotin, wek dibêjin, "çêkirin". Wek gotina "çerxesiyar" ("biskilêt"). Ev gotin ji alîyê miletê me yê li Qafqasyayê de hate qebûl kirin, kete nava zimanê gel û, wek dibêjin, heke niha em bixwazin wê bi zorê ji zimanê wan derxin, wê dernekeve. Lê gotinên wisa jî hatine çêkirin – wek "destçêxane" ("manûfaktûra"), ku heta îro jî tenê di nivîsaran de têne bi kar anînê, lê ji alîyê gel de nehatine qebûl kirin. Loma jî di axaftina rojane de nayêne bi kar anînê.*

| gotina rûsî ku derbasî nava kurmancî bûye | orîgînala gotinê bi rûsî | bilêvkirina gotina rûsî bi kurmancî | maneya gotinê bi kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|---|---|
| agûşke, axûşke | окошко (окно) | akoşka | pencere, pace | pencere | fenêtre | window |
| badval | подвал | padval | jêrzemîn | bodrum | sous-sol | basement |
| boçke | бочка | boçka | fiçî | fıçı | tonneau | barrel, cask |
| firxûn | фургон | fûrgon | erebeya hespan ya taybetî ji bo gîya / genim kişandinê | ot veya sap taşımada kullanılan at arabası | charrette à traction animale | cart, wagon |
| fayke | фуфайка | fûfayka | qazax | kazak | pullover, chandail | pullover |
| îskan, îstekan | стакан | stakan | qedeh | bardak, kadeh | verre | glass |
| îstol | стуль | stol | kursî | sandalye | chaise | chair |
| îşkaf, şikaf | шкаф | şkaf | dolab | dolap | armoire | cupboard |
| hindişqe | индюшка | îndyûşka | elok, elelok, hindî, şamî culux, cûrcûr | hindi | dinde | turkey |
| kanfêt | конфета | kanfeta | şekirê nav kaxezan | kağıtlı şekerlemeler | assortiment de bonbons | assorted sweets, candy |
| kapîk | копейка | kapêyka | qirûşê rûsî | rus kuruşu | piastre russe, kopek | kopeck |

| | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|
| kartol | картофель | kartofêl | patate | patates | pomme de terre | potato |
| kerpîç, kelpîç | кирпич | kîrpîç | agûr | kerpiç | brique d’argile, pisé | (clay) brick, adobe |
| kiloç, kulîçe | калач (кулича) | kalaç | kulîçe | çörek | petit pain au beurre | kind of bun |
| qaban | кабан | kaban | berazê kûvî | yaban domuzu | sanglier | wild boar |
| lom | лом | lom | qerase | manivela | manivelle, levier | crank, lever |
| manat | монета | manêta | pere, dirav, lîrayê rûsî | rus parası | monnaie russe | russian currency |
| matoşke, matoşqe | матрешка | matryoşka | keça xwexemilandî ya sivik; bûkika ku ji çend bûkên xemilandî yên dikevin nav hev pêk tê | süslenip püslenmiş oynak kız; içiçe giren Rus süs bebekleri | fille pomponnée et légère ; poupées russes qui s’emboîtent les unes dans les autres | a frivolous dolled up girl; a nest of Russian dolls |
| nesilqe | носилка | nasîlka | teşkere, teskere, darbest | sedye, teskere | civière, brancard | stretcher, litter |
| papîroz | папироса | papîrosa | cixare | sigara | cigarette | cigarette |
| spîçke | спичка | spîçka | niftik, kibrîd, derbik, kiftik | kibrit | allumette | match |
| pîyan | пьяный | pîyanîy | serxweş | sarhoş | ivre, saoul | drunk |
| rêzîn | резина | rêzîna | lastîk | lastik | élastique, caoutchouc, gomme | rubber, gum |
| semawer | самовар (сам+вар) | samavar | semawer | semaver | samovar | samovar |
| şewqe | шапка | şapka | şewqe | şapka | casquette, chapka | hat, cap |
| taçke | тачка | taçka | erebeya destan | elarabası | brouette | wheelbarrow |
| vazgal | вокзал | vakzal | stasyon | istasyon | gare | (railway) station |
| vêdrok, vêdro, bêdrok | ведро | vêdro | dewl, satil | kova | seau, baquet | bucket |
| zagon | закон | zakon | qanûn | yasa | loi | law |
| Kinyaz | князь | kinyaz | navê mêran e û maneya wê ”mîr” e. | ”Prens” anlamina gelen erkek ismi | prénom masculin qui signifie « prince » | a male name that means ”prince” |

# Termên wergera Şerefnamê ya Mela Mehmûdê Bazîdî

## - II -

**Amadekar: ELÎŞÊR**

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| hurî kirin | tahrik etmek | inciter, exciter, provoquer | to urge, to incite |
| pêşrew | öncü | avant-garde | vanguard |
| damena çiyayî | dağ eteği | piémont | foothills |
| şîrxwir | gözü pek, korkusuz | intrépide | bold, courageous, intrepid |
| siwarêd tazîsiwar | arap atı binicileri | cavaliers montant des chevaux arabes | riders of Arabian horses |
| nefîra şer | savaş borusu | clairon | horn, bugle |
| lalereng | kızıl | rouge, rouge sang | blood red, red |
| xoşnud kirin | memnun etmek | satisfaire | to please, to satisfy |
| ji şove | arkadan | par derrière | from behind |
| nik | yanına, yanında | chez | beside, by, to, at, next |
| serasîme | sersem | étourdi, abruti | iddy, dizzy, foolish |
| sil bûn | darılmak, küsmek | se fâcher | to become cross, to become angry |
| nihal | fidan | pousse, rejeton | sapling |
| kutah kirin | kısaltmak | écourter, raccourcir, abréger | to shorten, to abbreviate |
| rewane bûyîn | gönderilmek | être dépêché, être expédié | to be sent, to be dispatched |
| şul | iş, uğraş | 1) travail, boulot ; 2) occupation ; 3) affaire | 1) job, work; 2) occupation; 3) affair, matter |
| xalî kirin | boşaltmak | vider | to empty |
| bi şû ve zivirîn | geri dönmek | revenir, retourner | to turn back, to return |
| virêkirin | yollamak, yolculamak | envoyer, dépêcher | to send, to dispatch |
| melaqî bûyîn | buluşmak | se retrouver, se rencontrer | to meet, to meet again |
| parî vekirin | paylaşmak, bölüşmek | partager | to share, to divide up, to share out |
| rimbazî | mızrak oyunu | joute à la lance | tilting, jousting |
| çapekî: = çapûkî | çeviklik, çabukluk | agilité, rapidité | nimbleness, agility, quickness |
| rikêb kirin | özengilemek | éperonner | to spur (a horse) |
| pertaw kirin: = xwe dûr avêtin | sıçrayıp atlamak | bondir, sauter | to jump |
| leşkerdarî | ordu komutası | commandement de l’armée | the army command |
| sur: = dawet, şahî | düğün, şenlik | fête, noces, réjouissances | wedding feast, merriment, cheerfulness, gaiety |
| xwah: xwîşk, xuşk, xoşk, xoçk. | kız kardeş | sœur | sister |
| li hevûdu hatin | anlaşmak | s’accorder, parvenir à un accord, à un agrément | to agree, to come to an understanding, to reach an agreement |
| ferîfte | vurgun, tutkun | passionné, très amoureux | in love with, passionately in love with |
| dudah: = kovan | keder | peine, chagrin | sorrow, grief, affliction |
| sezawarî | layık olma | le fait d’être digne de | to be worthy of |
| sezawar | layık | digne de | worthy, fitting, deserving |
| sitemgîr | zalim | oppresseur, tyran | an oppressor, a tyrant, a brutal, a heartless |
| dirîx nekirin | esirgememek | ne pas réchigner, ne pas se montrer avare | not to grudge, to be unsparing in |
| kec: xwar, xwehr, keç | eğik | courbe, incliné | curved, inclined, sloping down, slanted |
| xur bûn | eğilmek | s’incliner | to bow, bow down, to incline |
| bêdom | sürmeyen geçici | temporaire, sans suite, momentané | temporary, momentary |
| noşî kirin | içmek | boire | to drink |
| serkêş | başı çeken | leader, chef de file | head, leader |
| pêkhatî | düzenli, eline ayağına düzgün | harmonieux, qui a belle allure | harmonious, fine style |
| pêkhatî bûyîn | düzenli olmak, eline ayağına düzgün olmak | faire bonne figure, avoir belle allure, être plaisant | to be harmonious, to be stylish, to be agreable |
| dinyadar | dünyevi dünya işleriyle uğraşan mal mülk sahibi olan | qui s’adonne aux occupations du bas monde | worldly |
| bixweserî: = serbixwe | bağımsız | indépendant | independent |
| anegor | ... göre | selon, d’après | according to |
| xwoş | sağ | vivant | alive, living |
| kuştandan: = kuştî | öldürülmüş | tué | murdered, killed |
| miryandan: = mirî | ölmüş | mort, décédé | dead |
| serkeşî: serkêşî | başı çekme, öncülük etme | action de mener, leadership | heading, leading |

# Peyvên di stranan de

Amadekar: Emîn NAROZÎ

## Strana: Xezalê û Reşît Paşa

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| xasbaxçe | hasbahçe | un beau jardin | a beautiful garden |
| firavîn = navroj | öğle yemeği | déjeuner | lunch |
| hewz | havuz | bassin, piscine | pool, swimming pool |
| gep | 1) avurt; 2) tıkım, lokma | 1) joue ; 2) bouchée | 1) cheek; 2) morsell, mouthful |
| kem = gutil, tûmik | küme, ot ya da bitki kümesi | buisson, touffe, bouquet (d'arbres) | bush, cluster |
| kema gîyayî | ot kümesi | touffe d'herbe | cluster of grass |
| pincar | yenilen her türlü ot | herbes comestibles | edible herbs |
| birçî / birsî | aç | affamé | hungry, starving |
| naveroj | günortası | en plein jour, au milieu de la journée | in the middle of the day |
| nexweş | hasta | malade | sick, ill, sick person |
| dewar | büyük baş hayvan | gros bétail | cattle |
| xulam | hizmetçi, uşak | domestique, serviteur | servant |
| gewde | gövde | corps | trunk, body |
| kurîya derzîyê | iğne deliği | chas (d'une aiguille) | eye of a needle |
| filan û bêvan | falan filan | tel et tel | such and such |
| qût | 1) yem; 2) aşlık, zahire | 1) fourrage; 2) provisions | 1) fodder; 2) provisions |
| belekî | alacalı, benekli | bigarré, bariolé | motley |
| qerwaş | hizmetçi kadın | servante | domestic servant (woman) |
| melkemot | azrail | l'Ange de la Mort, Azraël | Angel of Death, Azrael |
| cendek /term, cinyaz, laş | ceset, naaş | cadavre, dépouille mortelle | corpse, dead body |
| fekirin | bakmak | regarder | to look |
| dil ketin | gönül vermek | s'éprendre | to fall in love with |
| çoqil | baldır | mollet | calf (of leg) |
| şaşik | sarık | turban | turban |
| çirandin | yırtmak | déchirer | to rip, to rend, to tear |
| pîne | yama | pièce pour rapiécer | a patch |
| pîne kirin | yamalamak | rapiécer, rafistoler | to patch, to vamp |
| dirûn/ dirûtin: | 1) dikme; 2) dikmek | 1) couture ; 2) coudre | 1) sewing; 2) to sew |
| gunikreş | taşaklı | brave, hardi, qui a des couilles | brave, pluchy |
| parîkî | biraz, azıcık | un peu, un moment | for a moment, somewhat, a little |
| destmêj /destnivêj, destnimêj | abdest | ablutions rituelles musulmanes | ritual ablutions |
| destnimêj girtin | abdest almak | faire les ablutions musulmanes | perform one's ablutions |
| xatûn | hatun | dame | lady, madam |
| qîr/qîrîn/qêrîn | çığlık, nara, haykırış | cri, hurlement | outcry, cry, yell |
| kerika guh | dış kulak ağzındaki kıkırdaksal çıkıntı | tragus | tragus |
| erq | ark | fossé, tranchée | ditch, trench |
| teselî kirin | 1) denemek; 2) kontrol etmek | 1) tester, mettre à l'épreuve ; 2) contrôler | 1) to test; 2) to check, to control |
| ferqaz | atlama | saut, bond | jump, jumping |
| ferqaz kirin | atlamak | enjamber, sauter | to straddle |
| berr | kilim | kilim | kilim |
| sax bûn/xweş bûn, pak bûn, baş bûn | iyileşmek | aller mieux, se rétablir | to get better |
| govend | halay | ronde, danse folklorique kurde | Kurdish folk dance |
| dîlan | halay | fête, festivité | celebration, festivity |
| govend girtin/ gerandin | halay çekmek | danser (en ronde) | to dance folk dance |
| reş û tarî | kapkaranlık, zifiri karanlık | ténèbres, nuit noire | pitch darkness |
| qamqurf = çokqurf | dizlerinin bağı çözülmek | avoir les jambes qui ne portent plus | to become suddenly weak in the knees, cower |
| stêrk | yıldız | étoile | star |
| destebiratî / destbira | kanka | frère juré | blood brother |
| şikeft | mağara | caverne, grotte | cave, cavern |
| pekîn | 1) fırlamak, sıçramak; 2) fırlama, sıçrama | 1) bondir, s'élancer ; 2) bond , élan (n.m .) | 1) to pop out, jump out; 2) popping out, jumping out |
| pekandin | 1) fırlatmak, sıçratmak; 2) fırlatma, sıçratma | 1) lancer, jeter, faire voler, faire jaillir, faire gicler; 2) lancement, envol, jaillissement | 1) to hurl, fling, throw, hurtle; 2) throwing, hurtling |
| fetisîn | 1) boğulmak; 2) boğulma | 1) s'étouffer, suffoquer ; 2) suffocation (n.f.), étouffement | 1) to be choking, suffocate, stifle; 2) suffocating, stifling |
| fetisandin | 1) boğmak; 2) boğma | 1) étouffer ; 2) étouffement | 1) to choke, suffocate, stifle; 2) choking |
| seke = sike | sikke | monnaie | currency |
| birîndar | yaralı | blessé | injured, hurt, wounded |
| paşil = paşik, paxil | koyun, sine | sein, giron | bosom, breast |

# Peyvên di qewlên Êzîdîyan de

## - III -

Amadekar: Reşo ZÎLAN

| kurdî | tirkî | frasizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| mestexane | meyhane | taverne, cabaret | barroom, pub |
| ji yek; ji hev | birbirinden | 1) semblable, similaire ; 2) qui ressemble l'un à l'autre | 1) similar; 2) looks like each other |
| çile | 1) ölünün 40 günü; 2) doğum yapan annenin 40 günü; 3) yeni doğmuş bebeğin 40 günü; 4) kış | 1) 40 jours après la mort de qqn. ; 2) 40 jours après l'accouchement pour la mère ; 3) 40 jours après la naissance pour un bébé 4) quarantaine la plus froide de l'hiver | 1) for a deceased 40 days after death; 2) for a woman 40 days after birth; 3) for a baby 40 days after his birth; 4) the 40 coldest days of winter |
| zergûn | altın sarısı | doré | golden |
| vêre; jê re | ona | pour lui/elle | to him /her /it |
| qewilzan | Yezidi deyişleri bilen | personne connaissant les hymnes réligieux yézidi | religious poem skill of Yezidi |

| | | | |
|---|---|---|---|
| xwezme: = xwezî | keşke | (formule de souhait) j'aimerais, si seulement | if only |
| xetxwîn | okur, okuyabilen | lecteur(trice), capable de lire | reader, able to read |
| pîşk | iş, amel | travail, action, activité | act, deed, activity |
| holî: = olî, holîk | üstü oturulacak altı ahır olan iki katlı ev | maison d'un étage dont le rez-de-chaussée est utilisé comme étable | / two story house whose first floor is used as stable |
| gogker | top oynayan | footballeur, joueur de football | footballer, football player |
| maltijî | bolluk içinde yüzen | qui vit dans l'abondance, dans l'aisance | who is living in profusion |
| pêşber | karşı | contre, opposé, à l'envers | against, opposite |
| perês | inançlı | croyant(e) | believer |
| şîrdêr | sütveren | nourrice, qui allaite un bébé | person who suckles child |
| çox | çuha | drap | broadcloth |
| agirek jenîn | çakmak taşıyla ateş yakmak | allumer du feu en frottant un silex | to make a fire through the striking on a flint |
| agir hilkirin | ateş yakmak | allumer du feu | to make a fire |
| kepenek | kepenek | cape de berger en feutre | shepherd's felt cloak |
| êsîn: = îsîn | parlamak | briller, scintiller | to shine, gleam, glisten |
| agir dadan | ateş yakmak | faire du feu | to make a fire |
| qedemgeh | konak | grande demeure | residence, large and imposing house |
| sitî | hanım, hanımefendi | dame, maîtresse, madame | lady, mistress, madam |
| berbor | geçit | passage | passageway, passage, a way through |
| xêl | aşiret | tribu, clan | tribe, clan |
| têr bijî! | çok yaşa! | à vos souhaits, béni sois-tu ! | bless you! |
| zav | 1) dayanıklı, sağlam, güçlü; 2) yetenekli | 1) durable, robuste, vigoureux, fort ; 2) capable, habile, talentueux ; convenable | 1) durable, lasting, sturdy, strong; 2) able, capable, talented; apt |
| hest | duygu, şuur | sens, sentiment, sensation | sense, feeling, sensation |
| buxs | hoş koku | parfum agréable, senteur | fragrance, sweet scent |
| bi coş | coşkuyla, coşkun | enthousiaste, exubérant, bouillant | enthusiastic, exuberant, ebullient |
| beysûs | sönük ışıltı | lueur, faible lumière | faint light, weak light |
| çêkir | yapan | celui qui fait, acteur, auteur, faiseur | doer, maker, performer |
| raz | sır | secret, mystère | secret, mystery |
| dîndar = dîdar | görüşme, görme, ziyaret | rencontre, entrevue, visite | meeting, interview, exchange of views, visit |
| mirandin | öldürmek, yaşamına son vermek | tuer, assassiner, mettre à mort | to kill, murder |
| xerbende | eşek, katır gibi yük hayvanlarına bakan | personne employée pour prendre soin des animaux de bât | a person employed to take care of pack animals |

# Termên fûtbolê
## - V -

**Amadekar: Mustafa AYDOGAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| kart | kart | carton | card |
| karta sor | kırmızı kart | carton rouge | red card |
| karta zer | sarı kart | carton jaune | yellow card |
| kart nîşan dan | kart göstermek | mettre un carton | to issue a card |
| bi karta zer ceza kirin | sarı kartla cezalandırmak | avertir par un carton jaune | to warn with a yellow card |
| bi karta sor ceza kirin | kırmızı kartla cezalandırmak | sanctionner par un carton rouge | to punish with a red card |
| kart nîşanî ... dan | ...e kart göstermek | mettre un carton à quelqu'un | to give s.o. a red card |
| kart wergirtin | kart almak, kart görmek | recevoir un carton | to receive a red card |
| kart hebûn | kartı olmak | être averti / avoir un carton | to be warned/to receive a card |
| karta zer hebûn | sarı kartı olmak | avoir un carton jaune | to get a yellow card |
| karta sor hebûn | kırmızı kartı olmak | avoir un carton rouge | to get a red card |
| balkişandî/balkişayî | uyarılmış | averti | warned |
| balkişandin | uyarı | avertissement | warning |
| bal kişandin | uyarmak | avertir | to warn |
| kurtepas, pasa kurt | kısa pas | passe courte | a short pass |
| dirêjepas, pasa dirêj | uzun pas | passe longue | a long pass |
| pasa berepaş | geri pas | passe en retrait | a back pass |
| pasa berepêş | ileri pas | passe en avant | a through ball |
| pasa golkirinê, asîst | asist, gol pası | centre décisif, passe décisive | a decisive cross |
| pas dan | pas vermek | passer, centrer | to pass, to cross |
| pas dan hevdu | paslaşmak | passer, faire tourner le ballon | to pass the ball (around) |
| dîwarepas/da û bezî | duvar pası/verkaç | une deux | one-two |
| pahnîpas, pasa bi pahnîyan, pasa panîkî | topuk pası | passe en talonnade | back heel |
| rexpas | yan pas | passe en biais | a slanted ball |
| pasa bilind, bilindepas, pasa hewayî | havadan (atılan) pas | centre en hauteur | a cross |
| pasa erdî, pasa bi erdê re | yerden (atılan) pas | centre bas, passe à ras de terre | low cross |
| di ser re avêtin | aşırtmak | envoyer le ballon par-dessus de la tête | to send a high ball |
| avêtin tacê | taca atmak | mettre en touche | to kick the ball into touch |
| çiv dan | çalım atmak | dribbler | to dribble |
| çivdan | çalım | dribble | dribble |
| çivdêr | çalımcı | dribbleur | dribbler |
| di ofsaydê de man | ofsaytta kalmak | être hors-jeu | to be off-side |
| ketin ofsaydê | ofsayta girmek | être hors-jeu | off-side |
| faul | faul | faute | foul |
| malemeydan | iç saha | domicile | home |
| dûremeydan, deplasman | deplasman, dış saha | déplacement à l'extérieur | away |
| maça li dûremeydanê | dış sahadaki maç | match à l'extérieur | an away game or match |
| maça li malemeydanê | iç sahadaki maç | match à domicile | a home game or match |
| lêdana meqeskî (roveşata), meqeslêderî | röveşata | frappe en ciseau ou bicyclette | bicycle kick |
| lêdana volekî, volelêderî | vole | frappe en volée | volley kick |

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du Bulletin de liaison et d'information
N° C.P. : 65913 A.S.


106, rue La Fayette,
75010 Paris - France,
Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64
www.fikp.org
*Directeur de la publication* : **Reşo ZÎLAN**
*Réalisation* : **M. HASSAN, S. ILITCH, Y. KARADEMIR**